# BUROYA KURDÎ
## ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê - N° 49 Gulan 2009 www.kurdishbureau.be**
**Quai aux Pierres de Taille 11, 1000 Bruxelles - Tél. 02 219 80 60 - kurdishbureau@scarlet.be**



## XEBATA BUROYA KURDÎ

*Nîsan 2009*

### KONFÊRANS

***26.04.2009 : Mêdyayên kurdî***

Banû Şemzîn Cihanî, rojnamevan, rola mêdyayên kurdî û aliyên wan ên erênî û neyînî şirove kirin.



Wê anî bîran ku rojnama yekemîn a kurdî „Kurdistan“ li sirgûnê, li Qahirê, di 1898 de derketi bû û ku kartêkirineke (te’sîr) mezzin li ser gelê kurd kir. Lê, ji sedema perçekirina Kurdistanê di nav çar perçeyan de, mêdyayên kurdî ketin bin kartêkirina welatên serdest û wan welatan ne hişt ku ev mêdya pêş de biçin. Weka nimûne, Tirkiyê navê Kurdan kiri bû „Tirkên çiyayî“, Îranê ew weka dergevanên sînorên di navbera Îran û Iraqê de hesab dikir, li Iraqê Hesen El-Mecîd, pismamê Saddam Huseyn ku bi navê „Elî Kîmyawî“ hatiye nasîn ji Kurdan re digot „Seh !“ (kûçik), û Sûriyê netewahiya sûrî ya jimareke mezzin ji Kurdan ji wan stend.

Ji sedema nebûna dewleteke kurdî, mêdyayên kurdî girêdayî partiyên ramyarî (siyasî) yên kurdî ne û li gora berjewendiyên (menfe’et) wan dilivin, ji bo ku ev partî ciyê dewletê distînin. Bi ser de jî, nebûna zimanekî kurdî yê yekbûyî (standard) kartêkirina van mêdyayan li ser gelê kurd qels (zeîf) dike.

# KURDISTANA TIRKIYÊ

**RADIO 6, BI KURDÎ**
***Di 01 Nîsan 2009 de***, şirketa fermî ya tirkî ya radyo û têlêvîzyonê, TRT, dest bi weşanên radyo bi kurdî, Radyo 6, kir. Meriv dikare li ser FM û bi riya ajansa satêlîtî Türksat guhdariya wan bike. Di 01 Çile 2009 de, ev heman (eynî) şirket kanaleke têlêvîzyonî bi kurdî, TRT 6, dest pê kiri bû (li bultena me ya buhurî binêre).
*(serwext.com, 02.04.2009; avestakurd.net, 13.04.2009)*

**DADGEHEKE ALMANÎ BERPIRSIYAREKÎ PKKê TAWANBAR DIKE**
***Di 01 Nîsan 2009 de***, dadgeha cezayî ya Frankfurtê berpirsiyarekî PKKê, Muzafferr Ayata (52 salî), bi 3 sal û 2 meh zîndan tawanbar (mehkûm) kir.
Ayata berpirsiyarê PKKê li Frankfurt, Munich û Stuttgartê, ji Tîrmeh 2005 heta Tebax 2006, bû. Ew bi anîna bidizzî ya hevalan Almanya û stendina pere bi zorê, ji bo partiya xwe, ji Kurdên ku li almanya dijîn hati bû tawanbar kirin.
*(avestakurd.net, 02.04.2009)*

**DOZA ERGENEKONê (DÛMAHÎK)**

***BÎRÊN MIRINÊ***
***Di 02 Nîsan 2009 de***, bi amadebûna dozkarê (prokuror) komarê yê Diyarbekirê, encumeneke Rêxistina Mafên Mirov li Tirkiyê û hin endamên malbatên kesên hundabûyî, „bîrên“ ku tê de 461 hestî hene li gundên Simaq, Karaçalı û Ziyarettepê, li nêzîkî Diyarbekirê, hatin dîtin.

Xuya ye ku ev kuştin ji aliyê JITEMê hatine kirin. JITEM polîsê taybetî yê tirkî ye. Ew berpirsiyarê „kuştinên ne zelal“ ên 17.000 kesan di salên 1980-1990 de bû.
*(netkurd.com, rizgari.org, serwext.com, azady.nl, 03.04.2009; nefel.com, avestakurd.net, 04.04.2009)*

***Di 16 Nîsan 2009 de***, bi xwestina serokê barroya Şirnexê, Nûşîrwan Elçi, li Cizîrê kolanên bîran dest pê kir. 20 hestî hatin dîtin. Li gora guwahekî (şahid), ev hestiyên kesên ku di 1990 de hati bûn kuştin û veşartin in.
*(serwext.com, 17.04.2009)*

***Di 18 Nîsan de***, 60 hestiyên din, 20 gulleyên vala û cillên çirriyayî li Cizîrê hatin dîtin.
*(serwext.com, 18.04.2009)*

***Di 27 Nîsan de***, hestiyên 5 kesên ku di 1993 de hati bûn kuştin û avêtin bîrekê ji aliyê gundiyên navçeya Nisêbînê, li nêzîkî Mêrdînê, hatin dîtin.
*(avestakurd.net, 28.04.2009)*

***DÎTINA ÇEKKAN***
***Di 12 Nîsan 2009 de***, 14 bombeyên dest li ser riya Malatya-Sêwasê hatin dîtin. Ew bi rojnameyên ku di salên 1997-1999 de hati bûn weşandin hatine pêçandin. Tê şîmane (texmîn) kirin ku ew ji aliyê JITEMê hati bûn bi kar anîn.
*(serwext.com, 12.04.2009)*

***Di 21 Nîsan de***, çek li zeviyekî (erd) Weqfa Bedrettin Dalan ku îro li Amerîka dijî, li taxa Poyrazköy, li Istanbûlê, hatin dîtin : 10 rokêtavêj, 10 bombeyên dest, 43 bombe, 250 gr. teqemenî « TNT » û 564 ber (gulle).
*(netkurd.com, 22.04.2009)*

***Di 23 Nîsan de***, 5 bombe li ser riya Sêwas-Erzincanê, li nêzîkî şaredariya Hafikê, hatin dîtin. Şivanek servîsên ewlehiyê pê agahdar kirin.
*(serwext.com, 23.04.2009)*

***RAGIRTINA BERPIRSIYARÊN ZANÎNGEHAN Û KESÊN DIN***
***Di 13 Nîsan 2009 de***, Professeur Mehmet Haberal, berpirsiyarê zanîngeha Başkentê û berpirsiyarê kanala têlêvîzyonî Kanal 2, û Prof. Ferit Bernay, berpirsiyarê berê yê zanîngehên Inönü û Samsunê, di çarçeva doza Ergenekonê de hatin ragirtin.
*(netkurd.com, serwext.com, rizgari.org, 13.04.2009)*

***Di 21 Nîsan de***, piştî dîtina çekkan li Istanbûlê (li jor binêre), polîs li Ankara efserekî (zabit) xanenişîn (teqa'ud), Levent Bektaş, û 4 efserên ku hîn kar dikin ragirtin.
*(netkurd.com, 22.04.2009)*

**SEROKÊ AMERÎKÎ RASTÎ SEROKÊ DTPê TÊ**
***Di 05 Nîsan 2009 de***, di dema seredana xwe ya Tirkiyê de, serokê nuh ê Amerîka, Barak Obama, rastî serokê partiya ku bi awakî ne fermî kurdî ye « DTP », Ahmet Türk, ku di heman (eynî) zemanî de serokê koma vê partiyê li Parlementa tirkî ye, hat.

Mîrza Obama got ku pirsa kurdî divê ku bi riya dyalogê, ne bi çekkan, bê çare kirin. Mîrza Türk dosyeke ku tê de daxwaziyên partiya wî li ser mafên Kurdan li Tirkiyê hebû da wî.

*(avestakurd.net, 06.04.2009 ; netkurd.com, peyamner.com, azady.nl, 07.04.2009)*

**ŞEŞ ZAROK TÊN TAWANBAR KIRIN**
***Di 06 Nîsan 2009 de***, dadgeha Adana 6 zarokê kurd bi 4 sal zîndan tawanbar kirin, ji bo ku wan di 18.10.2008 de ji bo serokê PKKê, Abdullah Öcalan, beşdarî xwepêşandanekê (meşîn) bû bûn.
*(netkurd.com, 07.04.2009)*

**RAGIRTINA ENDAMÊN DTPê**
***Di 14 Nîsan 2009 de***, bi fermana dozkarê komarê yê Diyarbekirê, polîs li 12 bajaran tevgerek kir û ji 70 kesan bêtir ragirtin. Ji van kesan, cîgira serokê DTPê, Selma Irmak, û her du cîgirên serokê vê partiyê, Kamuran Yüksek û Bayram Altun.
*(Hürriyet, Milliyet, netkurd.com, serwext.com, peyamner.com, 14.04.2009 ; azady.nl, 18.04.2009)*

Piştî van ragirtinên girseyî (kitleyî), DTPê nameyek ji Internationale Socialiste û partiyên sosyalîst ên endamên Parlementa Ewropî re nivîsî. Ew tê de ji Yekîtiya Ewropî dixwaze ku li ser Tirkiyê fişaran (ta'zyîq) bike ji bo ku ew pirsa kurdî bi aşîtiyane çare bike.
*(avestakurd.net, 17.04.2009 ; Hürriyet, Milliyet, 18.04.2009)*

***Di 20 Nîsan de***, 100 endamên DTPê hatin ragirtin.

***Di 21 Nîsan de***, 104 endamên heman partiyê hatin ragirtin.
*(rudaw.net, 21.04.2009)*

***Di 22 Nîsan de***, serokê şaxa Kocaeli ya DTPê, Ali Kavak, hat ragirtin.
*(netkurd.com, 22.04.2009)*

**RISWAKIRINÊN PARLEMENTERÊN PARTIYA DTPê**
***Ji 22 heta 23 Nîsan 2009***, ji bo riswakirina (protêsto) van ragirtinên girseyî yên endamên DTPê, 20 parlementerên vê partiyê li ser kursiyên xwe yên parlementê rûniştî man. Ew di katjmêr 8 a serê siba 23 Nîsanê ji parlementê derketin.

Ji derveyî van tevgeran, xwepêşandanên girseyî li bajarên cihê hatin pêk anîn.
*(Milliyet, netkurd.com, 22.04.2009 ; rizgari.org, azady.nl, serwext.com, 23.04.2009)*

**AXAFTINA BI KURDÎ LI PARLEMENTÊ NEMA SÛC E !**
***Di 15 Nîsan 2009 de***, dozkarê yekemîn ê komarê yê Ankara biryar stend ku nema li dû parlementerê kurd Ahmet Türk, ku di 24 Sibat 2009 de, li civîneke partiya xwe DTPê, li parlementa tirkî bi kurdî peyivî bû bikeve !

Dozkar got ku *« ne li gora destûrê, ne jî zagona partiyên siyasî, ne sûc e ku meriv li Parlementê bi zimanekî ne tirkî bipeyive » !*

ango, ji nuha û şûn de nema sûc e ku meriv li civînên komên siyasî û rûniştinên parlementa tirkî bi kurdî bipeyive !
*(azady.nl, 15.04.2009 ; Milliyet, rizgari.org, 16.04.2009)*

**DU CUHAN TÊN TAWANBAR KIRIN**
***Di 17 Nîsan 2009 de***, dadgeha cezayî ya Diyarbekirê du cuhan bi cezayên girtinê tawanbar kirin, ji bo ku wan di 2008 de ala tirkî anî bû xwarê. Yusuf Çetinkaya cezayê 10 salan, û Resulê 17 salî 8 sal û 3 meh zîndan stend.
*(netkurd.com, 17.04.2009)*

**DU ŞAREDAR TÊN TAWANBAR KIRIN**
***Di 20 Nîsan 2009 de***, dadgeha cezayî ya Diyarbekirê şaredarê Diyarbekirê, Osman Baydemir, û şaredarê Êlihê (Batman), Necdet Atalay, bi 10 meh zîndan tawanbar kirin, ji bo ku wan di 25 Sibat 2008 de, bi hinceta tevgerên leşkerê tirkî, ji çekdarên PKKê re goti bû „Gêrilla".
*(netkurd.com, nefel.com, rizgari.org, 21.04.2009)*

**BERPIRSIYAREKÎ DTPê TÊ TAWANBAR KIRIN**
***Di 20 Nîsan 2009 de***, dadgeha cezayî ya Diyarbekirê serokê şaxa Diyarbekirê ya partiya DTPê, Ali Şimşek, bi salek zîndan, ji bo axaftina wî li şîna çekdarekî PKKê, tawanbar kir.
*(netkurd.com, 21.04.2009)*

**ZAROKEK JI ALIYÊ POLÎS TÊ KUŞTIN**
***Di 23 Nîsan 2009***, li xwepêşandaneke ji bo partiya kurdî DTPê li Colemêrgê (Hekarî), polîs bi hovî li zarokan xist. Yek ji wan, Abdulsamet Erip, 14 salî, mir û yekî din jî bi giranî birîndar bû. Roja din, bazarganên Geverê firoşgehên (dikkan) xwe girtin û xwepêşandaneke mezzin ji vo van zarokan pêk anî. Polîs bi tank û gazên hêstirî êrîş kir.
*(rizgari.org, 24.04.2009; Hürriyet, Milliyet, 25.04.2009)*

**BOMBEKIRINA KURDISTANA IRAQÊ JI ALIYÊ TIRKIYE Û ÎRANÊ**
***Di 29 û 30 Nîsan 2009 de***, piştî kuştina 9 serbazên (esker) tirk ji aliyê PKKê li Diyarbekirê, firokeyên tirkî cardin navçeyên sînorî yên Kurdistana Iraqê, Zab û Avaşîn, bombe kirin.

Firokeyên îranî jî gundên Doka Kokê, Meredo û Rêzgê, yên çiyayê Qendîlê, bombe kirin.
*(netkurd.com, 30.04.2009)*

# ÊRÎŞ LI DIJÎ KURDÊN QIRGIZISTANÊ

***Di 26 Nîsan 2009 de***, bi fermana serokê Tevgera Yekbûyî ya Gel, Saparbek Arginbayev, nêzîkî 500 Qirgizên nijadparêz êrîşî gundê kurdî Petrovkay kir. Wan êrîşî 100 malan kir, 18 talan kirin û bi dehan Kurd birîndar kirin û dewar (heywan) û hebûnên wan stendin. Tê gotin ku polîsên sîvîl di nav êrîşkeran de bûn.

Leşkerê qirgizî zû hat û serokê Qirgizistanê, Kurmanbek Bakiyev, ji hukûmeta xwe xwest ku berpirsiyarên vê êrîşa nijadparêz bibîne. Rêxistin û ronakbîrên kurd bi sazendeyên dewletê re havkarî kir ji bo ku rê li ber reva rûniştevanên vî gundî bigirin.

*(netkurd.com, 30.04.2009)*

***Di heman rojê de***, Yekîtiya Kurdên Qirgizistanê nameyek ji serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, re şand û tê de jê xwest ku alîkariya wan bike ku vegerin Kurdistanê. Wan anî bîra wî ku bûyerên weha carna, weka di 1990 de, dibin, ku Kurd li vê komarê ji 1926 de dimînin û ku jimara wan digihêje 30.000

*(netkurd.com, avestakurd.net, 30.04.2009)*

# KURDISTANA IRAQÊ

**GORÊN HEVRAYÎ**

***Di 02 Nîsan 2009 de***, li gora malpera entêrnêtê Pukmedia, bermayiyên mirovî û cillên kurdî bi rêkewt (bi tesadufî) li Suleymaniyê, di dema karên avakirinan ji bo projeke hukûmeta Kurdistanê de, li nêzîkî baregeheke kevn a partiya Baas, hatin dîtin.

*(azady.nl, 02.04.2009)*

**SEREDENA ŞANDEKE BRÎTANÎ YA BAZARGANIYÎ**

***Di 05 Nîsan 2009 de***, nimînendeyên 14 şirketên brîtanî û rêxistina Middle East Association (MEA), ku karmendiyê (business) di navbera Ingiltere û Rojhilata Navîn de dabîn (te'mîn) dike, seredana xwe ya 6 rojî ya Kurdistana Iraqê kutah (xelas) kir.

Ev şanda 4mîn a MEA li Kurdistanê ye û ji aliyê çend wezîr û berpirsiyarên ramyarî hat pêşwazî kirin.

*(krg.org, peyamner.com, 06.04.2009)*

**SEREDANA WEZÎRÊ LUBNANÎ YÊ GEŞTÊ**

***Di 06 Nîsan 2009 de***, serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, pêşwaziya wezîrê lubnanî yê geştê (tûrîsm), Elî Maronî, kir.

Di rasthatina ku tê de çend berpirsiyarên ramyarî yên Kurdistanê beşdar bûn de, wezîrê lubnanî li ser girîngiya geştê li Kurdistanê peyivî û got ku welatê wî dixwaze ku tê de konsulxaneyekê veke.

*(peyamner.com, 06.04.2009)*

**SEREDANA ŞANDEKE TOSKANÎ YA SAXIYÊ**

***Di 06 Nîsan 2009 de***, şandeke toskanî (navçeyek li Îtalya) ya saxiyê, bi serokatiya Dr. Morelo Paulo, çû Kurdistana Iraqê û ji aliyê wezîrê planê, Osman Şiwanî, hat pêşwazî kirin. Amanca vê seredanê avakirina pêwendiyên dualiyî li ser saxiyê bû.

*(peyamner.com, 07.04.2009)*

**SEROKÊ AMERÎKA RASTÎ SEROKÊ KURDISTANÊ DIBE**

***Di 07 Nîsan 2009 de***, di çarçeva seredana xwe ya Iraqê de, serokê amerîkî yê nuh, Barak Obama, li Bexdadê rastî serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, hat. Di rasthatinê de, şandeke kurdî, bi serokatiya serokwezîr Nêçîrvan Berzanî, jî amade bû.

Her du alî li ser rewşa Iraq û Kurdistanê giftûbêj kir. Mîrza Obama got ku ew dîroka êşên gelê kurd dizane, ku ew bi awayekî erênî li ser pêşveçûna Kurdan, bi saya serokatiyeke xurt, dinêre û ku divê ku piştgiriya wan bê kirin.

*(netkurd.com, 07.04.2009; abknews.com, peyamner.com, avestakurd.net, nefel.com, rizgari.org, serwext.com, 08.04.2009)*

**ÊRÎŞ LI NAVÇEYÊN KURDÎ YÊN EREBKIRÎ**

***Di 11 Nîsan 2009 de***, li gora malpera entêrnêtê ya Eswat El-Iraq, berpirsiyarekî ewlehiyê li Mendelî da zanîn ku erebeyeke bombekirî li bexçeyekê li Başûrê vî bajarî teqiya, kesek mir û du kesên din jî birîndar bûn.

*(peyamner.com, 11.04.2009)*

***Di 15 Nîsan de***, bombeyek li Kerkûkê teqiya. 10 polîs hatin kuştin û 22 kes, ku gelek ji wan sîvîl bûn, birîndar bûn.
*(peyamner.com, azady.nl, 16.04.2009; avestakurd.net, 17.04.2009)*

***Di 26 Nîsan de***, zilamên çekdar ên nenas ketin çend malên Filleyan li Kerkûkê. 3 kes hatin kuştin û 2 birîndar kirin.
*(peyamner.com, 27.04.2009)*

**VEGERANDINA 187 LAŞAN KURDISTANÊ**

***Di 12 Nîsan 2009 de***, piştî merasîmeke şahane li ber parlementa Kurdistanê, laşên 187 kesên ku li du gorên hevrayî li Necefê, li Başûrê Iraqê, hatin bûn gor kirin hatin vegerandin Kelarê, navçeyeke erebkirî ya Germiyanê, li Kurdistana Iraqê.

Ev laş par hati bûn dîtin û di 20 Teşrîn 2008 de, bi merasîmeke taybetî hati bûn anîn firokexana Hewlêrê. Ew qurbanên nijadkujiya kurdî, Enfal, ku ji 1987 heta 1989 hati bû kirin, bûn.

**QEDEXEKIRINA PROPAGANDA SIYASÎ LI MIZGEFTAN**

***Di 12 Nîsan 2009 de***, berdevkê wezareta ewqafên olî ya Kurdistana Iraqê, Marîwan Naqşbendî, da zanîn ku ewê mêdya nema karibin xutbeyên li mizgeftan biweşînin, ji bo ku wan ji bo berjewendiyên (menfe'et) partiyên ramyarî (siyasî) bi kar neynin. Bitenê kanala têlêvîzyona çandî, Newroz TV, a hukûmeta Kurdistana Iraqê, ewê van weşanan bike.
*(aknews.com, 12.04.2009)*

**BÎRANÎNA NIJADKUJIYA KURDÎ LI UNê**

***Di 06 Nîsan 2009 de***, cara yekemîn nijadkujiya Halabca li UNê (Rêxistina Neteweyên Yekbûyî) li New Yorkê hat bîr anîn.

Bîranîn ji aliyê şandeya iraqî li bal UNê û Hukûmeta Herêma Kurdistana Iraqê, bi amadebûna balyozan (sefîr), endamên parlementa iraqî, rêxistinên navneteweyî yên mafên mirov û rûniştevanên Halabca, hat pêk anîn. Axafkeran bêdegiya cihanê di dema avêtina van çekên şîmîk di 1988 de riswa kir û bang kir ku gavên bilez (acil) bên avêtin ji bo ku nijadkujiyên weha nema dubare bibin.
*(krg.org, peyamner.com, 12.04.2009)*

**ŞANDEKE KURDÎ LI AMERÎKA**

***Ji 12 heta 21 Nîsan 2009***, şandeke ku ji serokê dîwana serokê Kurdistanê, Dr. Fuad Huseyn; berpirsiyarê servîsa pêwendiyên derve ya hukûmeta Kurdistanê, Fellah Mustafa, û nimînendeyê vê hukûmetê li Amerîka, Qubad Talabanî, çû Amerîka û tê rasthatinên cihê pêk anîn.

***Ji 12 heta 13 Nîsanê***, du rojan şande beşdar bû kongreya Encumena Atlantîk a Dewletên Yekbûyî yên Amerîka, ya li ser pêwendiyên di navbera Tirkiye û Kurdistana Iraqê de. Mîrza Fuad Huseyn li ser van pêwendiyan ji 1991 de peyivî û dilniya (te'kîd) kir ku nuha ew baş in û li ser dyaloga herdemî ava bûne. Mîrza Fellah Mustafa jî girîngiya pêwendiyên aborî di nav her du aliyan de ravekir û got ku şirketên tirkî projeyan li Kurdistanê dikin û ku girîngiya van pêwendiyan ji yên ramyarî (siyasî) ne kêmtir e.

***Di 15 Nîsan de***, şande ji aliyê berpirsiyarên bilind ên Koşka Sipî û encumena neteweyî ya ewlehiyê hat pêşwazî kirin. Giftûbêj li ser rewşa Iraqê bi giştî û ya Kurdistanê bi taybetî bûn.

***Di 16 Nîsan de***, rasthatinên cihê, ku ji wan bi serokê Navenda Daira Perwerdê re bûn. Serokê vê navendê pejirand (qebûl kir) ku alîkariya Kurdistanê bike ku kadroyan di warên cihê de, nemaze di xwendin û idarekirinê de, bên gihandin. Û hevpeyvînek jî bi rojnama Washington Times re bû. Ew roja din hat weşandin û jê perçeyên dirêj li ser malpera entêrnêtê ya vê rojnamê jî hatin weşandin.

***Di 17 Nîsan de***, rasthatin bi alîkarê cîgirê wezîrê karên derve, Richard Shmerer, û du berpirsiyarên karên Iraqê re.

***Di 18 û 19 Nîsan de***, şande çû Santiago, li California, ji bo ku beşdar bibe kongreya salane ya Rêxistina Cuhanên Kurdistanê li Amerîka, KAYO.

***Di 19 Nîsan de***, rasthatin bi revenda (diaspora) kurdî li California. Piştre, şande beşdar bû cêjneke revenda kildanî, bi hinceta bîranîna avakirina Rêxistina Civakî ya Kildaniyan, û bi matranê kildanî Serhed Cimo û kesên din ên olî re biftûbêj kir.

***Di 20 Nîsan de***, vegera Weshingtonê. Maseyeke gilover li navendeke bîrê (fikr), ya bi navê Navenda Pêşveçûna Amerika. Piştre, seredana serokê odeya amerîkî ya bazarganiyê û komeke sermayedaran. Rasthatinek bi berpirsiyarên encumena pêwendiyên derve ya Kongrêsa amerîkî re. Êvarê, bi serok û mamosteyên Zanîngeha Amerîkî ya Washingtonê re.

***Di 21 Nîsan de***, rasthatin bi alîkarê cîgirê wezîrê amerîkî yê parastinê û berpirsiyarên din re. Piştre, bi rojnamevanê navdar Thomas Friedman; birêvebirê encumena pêwendiyên derve ya Sênatoyê û danişmenda (şêwirmend) koma komarî li Kongrêsê re. Rasthatina dawîn bi Kris Van Holn, yek ni bihêztirîn endamên partiya dêmokrat, re.
*(peyamner.com, 23.04.2009)*

## SEREDANA ŞANDEKE FLAMANÎ

***Ji 13 heta 17 Nîsan 2009***, şandeke parlementerên flaman (Beljîka), bi hogiriya nimînendeyê Hukûmeta Herêma Kurdistana Iraqê li bal Yekîtiya Ewropî, li Bruksêlê, Burhan Caf, çû seredana Kurdistanê.

Şanda ku rastî kesahiyên fermî yên cihê hat û çû seredana gelek ciyan, ku ji wan Parlementa Kurdistanê, ji 5 endamên Parlementa Flamanî pêk hati bû : Johan Verstreken, ji partiya CD&V (Sosyal-Fille); Banû Anne Marie Hoebeke, ji partiya VLD (libêral); Jan Roegirers, ji partiya SP.A (sosyalîst); Piet de Bruyn, ji partiya N-VA (nasyonalîst a flamanî), û Eloi Glorieux, ji partiya Groen ! (kesk).

Ev seredan piştî biryareke Parlementa Flamanî ku pêwendiyên xwe bi Kurdistana Iraqê re bike hat pêk anîn. Van parlementeran xwest ku di destpêkê de bi çavên xwe rewşê bibînin.
*(peyamner.com, araratnews.eu, azady.nl, 16.04.2009)*

Di daxuyaniyeke ji ajansa çapemeniyê ya kurdî Peyamnêr re, nimînendeyê Hukûmeta Kurdistana Iraqê li Bruksêlê, Burhan Caf, got ku vê şandê dîtineke baş li ser Kurdistanê stend, hebûna tevgereke bazarganiyî û aborî bala wê kişand û ku dema ku vegere ewê 4 pêşniyaran bike : Naskirina Herêma Kurdistanê, xwestina ji hukûmeta fêdêral a beljîkî ku konsulxaneyekê li Kurdistanê veke û ji hukûmeta flamanî ku tê de buroyekê veke, wajokirina (imza) protokolan di warên perwerde, saxî û çandinê de.

Mîrza Caf li ser nêrîna Yekîtiya Ewropî jî peyivî û got ku serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, bala vê Yekîtiyê û Parlementa Ewropî bi awakî taybetî dikişîne.
*(peyamner.com, 24.04.2009)*

***Di 30 Nîsan 2009 de***, di civîna mezzin de, Parlementa Flamanî deng da projeya biryarê ku van 5 parlementeran pêşkeş kir.
*(Daxuyaniya çapemeniyê ya Hukûmeta Herêma Kurdistanê (KRG), Nimînendetiya li bal Yekîtiya Ewropî, 02.05.2009)*

## SEROKÊ FILISTÎNÎ LI KURDISTANÊ

***Di 13 Nîsan 2009 de***, serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, pêşwaziya serokê filistînî, Mehmûd Ebbas, kir. Piştre, wan bi hevre konfêranseke çapemeniyê pêk anî û tê de Mîrza Ebbas çarenûsa (qeder) her du gelan danî ber hev û ji Kurdan re hêvî kir ku di aşîtiyê de, weka her gelekî, bijîn.
*(peyamner.com, nefel.com, 14.04.2009)*

## RAPPORA AMNESTY INTERNATIONAL

***Di 14 Nîsan 2009 de***, Amnesty International rapporek li ser Kurdistana Iraqê, bi navê « Hope and Fear, Human Rights in Kurdistan Region of Iraq » (Hêvî û Tirs, Mafên Mirov li Herêma Kurdistana Iraqê), weşand. Ew ji 57 rûpelan pêk hatiye û tê de gelek foto hene.

Ev rappor piştî seredana Kurdistana Iraqê di 2008 de, ku tê de Amnesty vekolîneke (ankêt) kûr çêkir, hat weşandin. Ew tê de dilniya (te'kîd) dike ku hêzên ewlehiyê li Kurdistanê rûmeta (hurmet) dewleta huqûqê nakin û karîna xwe bi awakî xerab, êşkence û lênêrîna ne baş bi kar tînin.

Amnesty ji Humûmeta Herêma Kurdistanê dixwaze ku ji van berpirsiyaran hesabên pelixandina mafên mirov bixwaze. Û jê dixwaze jî ku azadiya çapemeniyê û mafên jinên ku qurbanên tundiyê (şiddet) ne biparêze.
*(Çapemeniya kurdî, 14.04.2009)*

***Di 23 Nîsan de***, serokwezîrê Kurdistana Iraqê, Nêçîrvan Berzanî, pêşwaziya şandeke Amnesty International, bi serokatiya Malkilm Simart, berpirsiyarê Rojhilata Navîn û Afrîka Bakur, kir.

Mîrza Berzanî rexneyên avaker ên Amnesty pejirandin û got ku ewê hukûmeta wî pê re hevkariyê, ji bo pêşdebirina pergala (sîstêm, nizam) hukûmî, bike.
*(krg.org, peymaner.com, 23.04.2009; netkurd.com, avestakurd.net, nefel.com, rizgari.org, 24.04.2009; azady.nl, Amnesty International, 26.04.2009)*

## SEREDANA ŞANDEKE PARLEMENTERÊN BRÎTANÎ

***Di Nîsan 2009 de***, şandeke parlementerên brîtanî, ya koma APPG „All-Party Parliamentary Group", bi hogiriya Banû Beyan Samî Abdulrahman, nimînendeya Hukûmeta Kurdistana Iraqê li Londonê, hefteyek çû seredana Kurdistanê. Ew ji Derek Wyatt, ji partiya kar „Labour"; Tobias Ellwood, ji partiya konsêrvatîf; Peer Lord Tim Clement Jones, ji partiya Libêral dêmokrat; Mark Phillips, serokê konsêrvatîf ê yaneya (êkîp) Baroness Neville-Jones (wezîra ewlehiyê) „Shadow Security Minister" û Gary Kent, birêvebirê APPG û mudîrê Hevalên Labour li Iraqê, hati bû pêk anîn.

Şande çû her sê bajarên Hewlêr, Duhok û Suleymaniyê û rastî serok Mesûd Berzanî û jimareke girîng a kesahiyên ramyarî, rojnamevan, sendîkacî, çalakvanên mafên jinê, berpirsiyarên zanîngehî û karmendan, û matranê fille li Hewlêrê hat. Û ew rastî civatên olî yên fille û yezîdî jî hat.

Li dawiya seredanê, şandê pesna pêşketina bingehî di warên aborî û civakî de, ku Kurdistana Iraqê ji dema seredana wê ya berê salekê de pêk aniye, da. Parlementeran xwest ku pêwendiyên nêzîktir di navbera Kurdistan û Brîtanya Mezzin de, di warên bazarganiyî, ramyarî, çandî û perwerdeyî de, bên kirin.
*(krg.org, 23.04.2009; avestakurd.net, 24.04.2009)*

# KURDISTANA SÛRIYÊ

## ROJNAMEVANEK TÊ RAGIRTIN

***Di 05 Nîsan 2009 de***, rojnamevanê kurd Farûq Hecî Mustafa, ku bi gotarên xwe yên li ser pirsa kurdî di çapemeniya erebî de naskirî ye, li Helebê ji aliyê servîsên dizzî yên sûrî hat ragirtin û birin ciyekî nenas. Heta nuha haya malbata wî jê nîn e.
*(avestakurd.net, peyamner.com, amude.com, 08.04.2009)*

## XWENDEKAREK TÊ RAGIRTIN

***Di 05 Nîsan 2009 de***, xwendekar û rojnamevanê kurd Bafil Elî ji aliyê ewlehiya leşkerî li Hesîçê hat ragirtin, Rêxistina Kurdî ji bo Parastina Mafên Mirov li Sûriyê, DAD, da zanîn.

Bafil Elî xwedekarekî zanîngeha Şamê û çalakvanekî kurd di warê agahdariyê de ye. Heta nuha tukes nizane ew li ku ye.
*(amude.com, 08.04.2009)*

## MAMOESTE TÊN ŞANDIN DERÊN DIN

***Di Nîsan 2009 de***, Rêxistina Kurdî ya Mafên Mirov li Sûriyê, DAD, da zanîn ku 6 mamosteyên kurd ji ciyên karên xwe hatine dûr xistin û şandin dibistanên dûr :

1- Ebdulqadir El-Yeznewî. Ew ji 25 salan de li Qamişlî mamoste ye. Hatiye şandin Tel Koçerê (navê erebî : Yarûbiyye), 100 km ji Qamişlî.
2- Ebdusselam Osman. Ji Amûdê hatiye şandin Hesîçê.
3- Isam Huç. Ew ji 20 salan de li Qamişlî mamoste ye. Hat şandin Tel Koçerê.
4- Nesrîn Têlo. Ji 20 salan de li Qamişlî mamoste ye. Hat şandin Cewadiyye, 500 km ji Qamişlî.
5- Usama Dawûd Mûsa. Ji Qamişlî hat şandin Tel Temirê.
6- Yûnis Husên Esseed. Ji Amûdê hat şandin Tel Hemîsê, û ji wira Tel Berakê.

Piştî serhildana kurdî ya 12 Adar 2004, jimareke mezzin ji karbistestên kurd ê çalak ji ciyê karê xwe hatin dûr xistin.
*(amude.com, 08.04.2009)*

## 24 KURD TÊN TAWANBAR KIRIN

***Di 14 Nîsan 2009 de***, dadgeheke leşkerî li Şamê 24 çalakvanên kurd bi nêzîkî saleke zîndan tawanbar kirin. Ew bi beşdarbûna xwepêşandanekê di 02.11.2007 de, li Qamişlî, li dijî leşkerê tirkî ku li dû çekdarên PKKê, li Kurdistana Iraqê, keti bû hatin bi sûc kirin.

Ji van girtiyan, du berpirsiyarên partiya kurdî Yekîtî, Fuad Elîko, sekreterê partiyê, û Hesen Salih, endamê polîtburoya wê. Piraniya girtiyên din endamên baskê sûrî yê PKKê, Partiya Yekîtiya Dêmokrat, in. Ev her duyên pêşîn beşdarbûna xwe vê xwepêşandanê inkar kir.
*(amude.com, netkurd.com, peyamner.com, 16.04.2009)*

## AMNESTY INTERNATIONAL

***Di Nîsan 2009 de***, di daxuyaniyekê de, Amnesty International ji hukûmeta sûrî xwest ku rewşa girtiyên kurd ku ji par de li zîndanên Qamişlî û Efrînê ne aşkere bike.
*(avestakurd.net, 16.04.2009)*

## RAPPOREKE AMERÎKÎ LI SER KURDÊN SÛRIYÊ

***Di Nîsan 2009 de***, Enstituya Amerîkî ya Aşîtiyê (United States Institute of Peace) rapporeke taybetî li ser Kurdên Sûriyê, bi navê « The Kurds in Syria. Fueling Separatist Movements in the Region ?" (Kurd li Sûriyê. Benzîna TevgerênVeqetînxwaz li Navçeyê ?), weşand.

Rappor ji aliyê Ridwan Ziyade hatiye nivîsîn. Ew tê de dibêje ku Kurdên Sûriyê ji mafên xwe yên civakî, çandî û ramyarî (siyasî) bêpar in û ku civata navneteweyî nema dikare çavên xwe li ser vê rewşê bigire. Ew ji Amerîka û Yekîtiya Ewropî dixwaze ku hemî navgînên (wasite) xwe yên dîplomatîk bi kar bînin ji bo ku Sûriye biguhere.

Meriv dikare rapporê li ser vê malperê bixwîne :
http//library.usip.org/articles/1012172.1076.1.PDF
*(amude.com, 29.04.2009)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ

**KONFÊRANSEK LI FÊDÊRALÎSMÊ LI ÎRANÊ, LI PARLEMENTA EWROPÎ**

***Di 01 Nîsan 2009 de***, li Parlementa Ewropî, li Bruksêlê, konfêransek bi navê « Mafên Mirov û Pirsa Dêmokratîkkirin û Fêdêralîsmê li Îranê » hat pêk anîn. Roja din, ***di 02 Nîsan de***, konfêransê li Hôtel Best Western County, li Bruksêlê, dewam kir.

Ew ji aliyê UNPO “Unrepresented Nations and Peoples Organization” (Rêxistina Netewe û Gelên Nenimînedekirî) û CNFI “Congress of Nationalities for a Federal Iran” (Kongreya Neteweyan ji bo Îraneke Fêdêral) û bi piştgiriya « Nonviolent Radical Party » (Partiya Radîkal a Netund) hati bû pêk anîn.

Ji 6 netewahiyên ku li Îranê dijîn, nimînendeyên 4 ji wan, Azerî, Kurd, Ereb û Belûç, peyivîn. Ên Faris û Tirkmenan nîn bûn. Profêssor û lêgerên îranî jî tê de lêkolînên xwe pêşkêş kirin. Banû Sabine Meyer, danişmend (muşawir) ji bo Pêwendiyên Navneteweyî li bal Koma Keskan/Alliance Libre Européenne (Hevalbendiya Azad a Ewropî), ya Parlementa Ewropî, konfêrans idare dikir.
*(Buroya Kurdî, 03.04.2009)*

**KONFÊRANS LI SER NIJADKUJIYA KURDÎ LI IRAQÊ, LI PARLEMENTA EWROPÎ**



***Di 02 Nîsan 2009 de***, li Parlementa Ewropî, li Bruksêlê, konfêransek bi navê « Nijadkujiya Kurdan di 1988 de » ji aliyê Koma Lîbêral a vê Parlementê, ALDE, bi hevkariya Rêxistina Swêdî-Kurdî, Gulan, hat pêk anîn.

Tê de ev kesahî peyivîn : Olle Schmidt, endamê swêdî yê Koma Lîbêral li Parlementa Ewropî ; Fredrik Malm, endamê partiya lîbêral a swêdî ; Salaheddîn Salih, nimînendeyê rêxistina Gulanê ; Burhan Caf, nimînendeyê Hukûmeta Herêma Kurdistana Iraqê li bal Yekîtiya Ewropî ; Dr. Bextiyar El-Caf, birêvebirê navneteweyî yê Enstituya Lêgerînên Rojhilata Navîn û Balkanê li Slovênya ; Dr. Munzer El-Fadl, ronakbîrekî iraqî yê ereb, Professorê huqûqa sîvîl û pisporê mafên mirov li Swêdê ; Dr. Muhammed Ihsan, wezîrê kurd ê berpirsiyarê navçeyên erebkirî yên Kurdistana Iraqê.
Piştî biftûbêj bi guhdaran re, fîlmeke belgeyî li ser nijadkujiya kurdî, bi navê « All my Mothers » (Hemî Diyên min), hat nîşan dan û rêsêpsyonek (koktêl) hat pêşkêş kirin. Li dikkê (tribune), alên ewropî û kurdî hatin bi dar ve kirin.
*(Buroya Kurdî, 03.04.2009)*

**PÊŞANGEHA NAVNETEWEYÎ YA PIRTÛKÊ LI KURDISTANA IRAQÊ**

***Di 02 Nîsan 2009 de***, bi amadebûna serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, vekirina Pêşangeha Navneteweyî ya Pirtûkê li Hewlêrê vebû.
Ev cara 4mîn e ku ev Pêşangeh li Kurdistanê vedibe û ewê deh rojan bajo. Tê de 200 weşanxane 1.500.000 pirtûk raxistin.
Di axaftina xwe de, serok Mesûd Berzanî got ku kartêkirina (te’sîr) pirtûkê ji ya bombe, tank û firokeyan bêtir e.
*(peyamner.com, avestakurd.net, nefel.com, 03.04.2009)*

**KONFÊRANSEK LI SER ÇÎROKÊN KURDÎ LI ISTANBÛLÊ**

***Di 06 Nîsan 2009 de***, li zanîngeha Bilgi, li Istanbûlê, konfêransek bi navê « Di edebiyata kurdî de, çîrokên Enwer Karahan û çîroknivîskariya wî » hat pêk anîn.
Bi beşdarbûna 150-200 kesan, ronakbîrên kurd ku li Ewropa dijîn aliyên cihê yên berhema Karahan pêşkêş kirin û balan kişandin ku ji sedema zoriyên li Kurdistanê, nivîskarên kurd ên revendê (diaspora) barê giran ê nivîskariyê hilgirtine ser pişta xwe.
*(netkurd.com, nefel.com, 06.04.2009)*

**LI SWÊDÊ XELATEK JI HEVALEKÎ EREB RE**

***Di 04 Nîsan 2009 de***, Xelata 3mîn a helbestavan Cigerxwîn ji ronakbîrê iraqî yê ereb, Munzir El-Fadl, re, li Pirtûkxana Kurdî li Sotkholmê, bi beşdarbûna partiyên ramyarî yên kurdî û gelek ronakbîran, hat dayîn.
Munzir El-Fadl hevalekî mezzin ê Kurdan e. Wî gelek gotar li ser pelixandina wan nivîsîne û lêgerînên girîng li ser nijadkujiya kurdî (Halabca û Enfal) kirine. Lêgerîna wî ya pêşîn *« Ji Enfal heta serxwebûnê, gelek dîrokê ava dike »* bû.

El-Fadl ji Necefê, li Başûrê Iraqê, ye. Wî huqûq li zanîngehên Bexdad, Hewlêr û Emmanê, û li dibistana huqûqê li Londonê jî, hîn kiriye.
*(avestakurd.net, rizgari.org, 05.04.2009)*

**PIRTÛKEK BI INGILÎZÎ LI SER KURDÊN SÛRIYÊ**
***Di Nîsanê de***, pirtûkek bi navê « Syria's Kurds, History, Politics ans Society » bi ingilîzî ji aliyê Jordi Tejel hatiye nivîsîn. Ew dîroka Kurdên Sûriyê ji 1946 heta nuha dibêje. Meriv dikare beşa wê ya pêşîn li ser entêrnêtê bixwîne : www.yasa-online.org
*(avestakurd.net, 06.04.2009)*

**LI INGILTERÊ XELAT JI KURDEKÎ CUHAN RE**
***Di 06 Nîsan 2009 de***, cuhanekî kurd ê Iraqê yê 15 salî, Şamal Şeyxa, ji dibistana xwe ya Olbury, li Ingilterê, Xelata « The Brightes Sat Award », ji sedema riya xwe ya xemgîn ber bi Ingilterê, stend.
Şamal li Kerkûkê bûye. Dema ku hemî malbata wî piştî teqîna bombeyekê mir, ew neçar bû ku jê biçe. Piştî riyeke dirêj, ew di payîza par de gihajt Worcesterê, li Ingilerê. Piştî lênêrînên bijîjkî (tibbî), ew hat birin bal malbateke pêşwaziyê li Oldbury. Di Çile 2009 de, wî dest bi xwendina duyemîn li dibistana Perryfieldsê kir.
Piştî guhdarîkirina çîroka wî ya gelek taybetî, di merasîmeke taybetî de jurî Xelat da wî.
*(azady.nl, 08.04.2009)*

**FÎLMEKE KURDÎ XELATA BAŞTIRÎN FÎLM LI YÛNANISTANÊ DISTÎNE**
Fîlma « Torgeh » a fîlmçêkerê kurd ê Îranê, Mohammad Huseyn Damin Zin, ji nav 170 fîlmên din li Fêstivala 11mîn a Fîlma Belgeyî ya Tessaloniki, li Yûnanistanê, hat nîşan dan. Wê Nîşana Zêrîn a baştirîn fîlma belgeyî stend.
Fîlm jiyana dijwar a 4 jinên kurd ên Bakurê Xurasanê (navçeyeke kurdî li Îranê ku tê de Kurd ji çend sedsalan de hatine sirgûn kirin) dibêje.
*(peyamner.com, 08.04.2009)*

**109 BÛRSÊN XWENDINÊ LI FRANSA**
Wezareta perwerdeya bilind û lêgerînên zanyarî li Kurdistana Iraqê biryar da ku 109 xwendekar bişîne Fransa, ji bo ku tê de li zanîngehan bixwînin. 56 ji wan ji Hewlêrê, 16 ji Duhokê û 37 jî ji Suleymaniyê ne.
*(Rûdaw, avestakurd.net, 09.04.2009)*

**ŞANOYEK BI INGILÎZÎ LI KURDISTANA IRAQÊ**
***Di Nîsan 2009 de***, şanoya „Zimanê Çiya" ya nivîskarê ingilîzî yê navdar, Harold Pinter, li zanîngeha Duhokê, hat lîztin.
Harold Pinter ev şanoya li ser qedexekirina zimanê kurdî li Tirkiyê, piştî seredana xwe Kurdistana Tirkiyê, nivîsî bû. Ew di 20 Çirî 1988 de li Şanoya Neteweyî li Londonê hati bû lîztin (li bultena me ya buhurî binêre).
*(avestakurd.net, 11.04.2009)*

**KONFÊRANSEKE AKADÊMÎK LI INGILERÊ**
***Di 12 Nîsan 2009 de***, konfêranseke akadêmîk li ser kurdzaniyê (kurdologie) li zanîngeha Exterê, li Ingilterê, bû. Ew ji aliyê Navenda Xebatên Kurd hat pêk anîn. Xwendekarên ku doktorayên xwe li ser Kurdistanê amade dikin û akadêmîkên kurd û brîtanî beşdarî wê bûn. Ji akadêmîkên kurd, Amîr Hasanpûr, Hamit Bozarslan, Jafer Şeyholislamî û Welat Zeydaoğlu, û ji yên ewropî Robert Olson û Michael Gunter hebûn.
*(netkurd.com, 13.04.2009)*

**ROJÊN WÊJEYÎ YÊN KURDÎ-ÇÊKÎ**
***Ji 19 heta 21 Nîsan 2009***, rojên wêjeyî (edebî) li Duhokê, li Kurdistana Iraqê, ji aliyê Yekîtiya Nivîskarên Kurd a vê parêzgehê, bi hevkariya şaxa çêkî (ji Çêkoslovakya) ya rêxistina navneteweyî ya nivîskaran, Pen-Culb, hatin pêk anîn. 5 nivîskarên çêk beşdarî wê bûn.
*(peyamner.com, 20.04.2009)*

**FÎLMEK LI SER KURDAN LI ALMANYA**
***Ji 16 Nîsan 2009 de***, fîlmek li ser Kurdan, lê bi zimanê tirkî, „Güneşi Gördüm" (Min Tav Dît) li eywanên sînema li Almanya hat nîşan dan. Fîlmçêker Kurdekî Tirkiyê, Mahsun Kırmızıgül, e.
*(amude.com, 15.04.2009; netkurd.com, 17.04.2009)*

**LI INGILTERÊ XELATEKE NAVNETEWEYÎ JI MAMOSTEYEKE KURD RE**
***Di 19 Nîsan 2009 de***, wezîrê perwerdê yê Kurdistana Iraqê, Dr. Dilşad Abdurrahman, li wezareta xwe pêşwaziya Banû Kezal Hesen Heme Rehîm, bi hinceta stendina wê dîplomeke naveneteweyî ya nirxdanê ji aliyê encumena çandî ya brîtanî, ji bo başbûna perwerdeya wê, kir.
*(peyamner.com, 19.04.2009)*

**XELATEKE WÊJEYÎ YA NORVÊJÎ JI KURDEKÊ RE**
***Di 20 Nîsan 2009 de***, xwendekareke kurd, Çro Burhanî, 26 salî, li Oslo tevî 120 xwendekaran beşdarî yariyeke (musabeqe) wêjeyî (edebî) bû. Wê xelata baştirîn gotar, ji bo gotara xwe li ser xelkê novêjî, stend.

Dema ku Çro, Kurdeke Iraqê, tevî dê û bavê xwe pena bû Norvêjê, ew 4 salî bû. Wê li zanîngeha Bergenê xwend û nuha masterek di zanînê (ilm) de amade dike. Wê da zanîn ku gotara xwe li ser bingeha jiyana xwe nivîsî.
*(awêne, azady.nl, 21.04.2009)*

**ŞANOYEK LI ISTANBÛLÊ**
***Di 21 Nîsan 2009 de***, şanoyek bi kurdî, "Mirina Zimanekî", ya şanoçêker Aydın Orak, li zanîngeha Bilgi, li Istanbûlê, hat lîztin. Ev şano ji ya nivîskarê brîtanî yê navdar Harold Pinter, "Zimanê Çiya", ku ji aliyê Mehmet Uzun bi navê "Mirina Egîdekî" hati bû wergerandin kurdî, hatiye stendin (li jor û li bultena me ya buhurî binêre).
*(netkurd.com, 22.04.2009)*

## PÊŞANGEHA GRAFÎKÊ LI YÛNANISTANÊ



***Di 23 Nîsan 2009 de***, li Tessalonik, li Yûnanistanê, pêşangeha wênekêş û grafîstê kurd ê Tirkiyê, Serhad Bapîr, vebû. Ewê li Navenda Çand û Hunerê ya Vafopulio heta 17 Gulan 2009 bimîne.

Ev pêşangeh a 7mîn a vî hunermendî ye. Ew tê de 92 berhemên ku di navbera 1988 û 2008 de afirandine nîşan dide. Katalogeke bi yûnanî û kurdî jî tê de heye. Tê de pêşgotinên şaredarê Tessalonikê, Vassilios Papageorgopulos; seroka Navenda Çand û Hunerê, Kseni Vlaxaki-Miliara, û rexnegira dîroka hunerê, Elli Kokkini-Kaplani, hene.

*(nefel.com, 26.04.2009)*

## HELBESTVANÊN KURD ÊN JIN LI ISTANBÛLÊ

***Di 24 Nîsan 2009 de***, 3 helbestvanên kurd ên jin, Fatma Savcı, Gulîzer û Jana Seyda, bi helbestên xwe beşdar bûn Fêstivala Navneteweyî ya Helbestê ya Beyoğlu, li Istanbûlê. Wan tê de helbestên xwe bi kurdî xwendin û ew hatin wergerandin tirkî. Fêstival ji aliyê Enstituya Zanînên Dîrokî û Civakî hati bû pêk anîn.

*(avestakurd.net, rizgari.org, welatperwer.com, 23.04.2009; netkurd.com, 24.04.2009)*

## RAPPÎSTEKÎ KURD LI TÊLÊVÎZYONA HOLLANDÎ

***Di 25 Nîsan 2009 de***, rappîstê kurd ê cuhan ê 19 salî, ku navê wî yê hunerî AnOng e, derket kanala têlêvîzyona hollandî SBS 6. Hunermendê cuhan li Rotterdamê dimîne û huqûqê dixwîne. Di şowa xwe ya 5mîn, di 25 Nîsan 2009 de, jurî bi yekdengî ew hilbijart. Wî bixwe şowa xwe ya hîphop afirandiye. Ew bi ingilîzî distirê û ji helbestên William Shakespeare ilhamê distîne.

*(azady.nl, 26.04.2009)*

## FÊSTIVALA MEWLANA XALID NEQŞBENDÎ LI SULEYMANIYÊ

***Di 27 Nîsan 2009 de***, li Suleymaniyê, li Kurdistana Iraqê, Fêstivala Mewlana Xalid Neqşbendî, bi beşdarbûna pisporên kurd û biyanî, mamoste û xwendekaran, dest pê kir. Ewê heta 30 Nîsan bajo.

Amanca Fêstivalê bîranîna Mewlana Xalid Neqşbendî, helbestvanekî mezzin, feylesûf, sûfî û siyasiyekî kurd, ku ji 1776 heta 1827 jiya bû, ye. Wî tarîqeta Neqşbendî anî bû Kurdistanê. Di 1820 de, ew li dijî desthilatên Suleymaniyê derketi bû, pena bû bû Şamê, li Sûriyê, û li wira di 1827 de miri bû.

Li Fêstivalê, ewê li ser berhemên wî û lêgerînên ku li ser wî hatine kirin bê giftûbêj kirin. Ji 200 mêvanên ku ji derve hatine bêtir beşdarî wê bûn. Ji wan, Matin Van Bruinessen, ji Hollanda; Helkewt Hekîm, ji Zanîngeha Sornonê, li Parîsê; Hamîd Attar, ji Amerîka; Peter Mannar, ji Hayfa, ji Israîlê, û xwendekar û mamoste ji Îran û Herêma Kurdistana Iraqê.

*(aknews.com, 28.04.2009)*

## KONFÊRANS LI SER KURDÊN TIRKIYÊ LI PARLEMENTA EWROPÎ

***Di 29 Nîsan 2009 de***, li Parlementa Ewropî, li Bruksêlê, konfêransek li ser Kurdên Tirkiyê, bi navê « The Kurdish human rights situation, a lasting peace and a democratic development » (Rewşa mafên mirov ên kurdî, aşîtiyeke demdirêj û pêşveçûneke dêmokratîk », bû. Ew ji aliyê Koma Çepê Yekbûyî yê Ewropî hat pêk anîn. Tê de ev kesahî peyivîn : endamê swêdî yê vê komê, Jens Holm ; parlementera kurd li parlementa swêdî, Emine Kakabaveh ; parlementera kurd a Parlementa Ewropî, Feleknas Uca ; birêvebira KHRP (Kurdish Human Rights Project), ku li Londonê ye, Rachel Bernu, û parêzera mafên mirov, Reyhan Yalçındağ.

*(Buroya Kurdî, 30.04.2009)*

BRUSSELS HOOFDSTEDELIJK GEWEST
VLAAMSE GEMEENSCHAPSCOMMISSIE

*Dit infoblad wordt met de steun van de Vlaamse Gemeenschapscommissie in 4 talen gepubliceerd : in het Koerdisch, het Frans, het Nederlands en het Engels.*